

## Xeyala min bi destê Barzanî bi cîh tê

Serokê Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) ya ku li Rojhilat têdikoşe û kurê Qazî Muhammed Alî Qazî da zanîn ku kurd û Kurdistanê du xeteriyên giran li dû xwe hiştine ku yek brakujî ye û ya din jî ew e ku deriyê li ber serxwebûna Kurdistanê êdî vebûye. Qazî da zanîn ku bavê wî alaya Kurdistanê teslîmî Mela Mistefa Barzanî kiriye û wî jî dayê Mesûd Barzanî û herwiha ew jî îro xeyala wî bi cîh dike. R 08-9

## Dengê ziman û olan li Mêrdînê

R16




# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL | Hejmar: 36 12 - 18 Çile 2015 basnews.com


# Ber bi Artêşa Netewî ve



Xebatên ku ji bo hêzên Pêşmerge wek Artêşa Netewî di bin banekê de bicivîne didomin. Piştî biryara Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, ji derdorên cûda yên siyasî jî daxuyaniyên piştgiriyê têne dayîn. Kevnewezîrê Pêşmerge û endmê YNK'ê Cafer Şêx Mistefa piştgiriya xwe bo damezrandina arteşê diyarkir. Sekreterê Giştî yê Partiya Bed Nahrenyn a Asûrî Romyo Hekarî jî da xuyakirin ku wê şervanên asûrî û suryanî jî di bin bana Wezareta Pêşmerge de bêne bi rêxistin kirin. Partiya Yekîtiya Îslamî ya Kurdistanê jî daxuyadn ku di vê mijarê de ew bi PDK'ê re li ser rêgezekê li hev hatine. R02-3



R14

## Fîlmê Mucize

Fîlmê Mahsun Kırmızıgülî bi giranîyê dram ê. Hîkayeyê xo rastken ê yan kî nêzdîyê rastenî yê. Fîlmanê eyî de merdim problemanê şarê ma vîneno. Labelê heme probleman yew film de vîneno. Bêşik qapasîteya yew fîlmî seba problemanê yew şarî bes nîya. Ziwanî ra teber kî problemî bî. Mesela malim bi rojan raye ra şî û winî rest be dewe. R06



## Kermanşa

R10-11

Ev bajarê bê serûbin, ev bajarê di nav çiyayên xemilandî de veşartî Kermanşa ye. Evder Dînewer a cîhê ku lê dîn û ayînên pîroz hatine wahîkirin e. Evder palepişta Xûresane, Xurneşîna ku li roj diçe ava ye.

# Du lehengên kurd koçkirin



Murat Bozlak ê kurdê Anatoliya Navîn di sala 1952'an de li Şereflikoçhisara Enqerê hatiye dinyê. Bozlak serokatiya HADEP'ê kiribû û di nava siyaseta kurd de cîhekî girîng digirt. Bozlak di 5'ê Çileyê 2015'an de jiyana xwe ji destda. R13

Siyasetmedar û rewşenbîrê qedir giran, bavê çar zarokan û mexdûrê serguniyê Siraç Bilgin ku beriya derbeya 12 Îlon'e tê girtin û demekê di Girtîgeha Amedê de tê girtin, piştre jî neçarî sirguniyê dibe jiyana xwe jidestda.



# Piştgiriya Artêşa Netewî zêde dibe

Li Başûrê Kurdistanê, xebatên ji bo Pêşmerge ji bin nîrê partiyên siyasî derkebe û di bin sîwanekê de weke Artêşa Netewî yekgirtî bibe didomin. Berovajiyê hin berpirsyarên xwe yên ku çend roj berê li dij biryara sazkirina Artêşa Neteweyî derdiketin YNK'ê jî, êdî piştgirî dide vê biryarê.

Xebatên ji bo hêzên Pêşmerge wek Artêşeke Neteweyî di bin banekî de dicivîne didomin. Piştî vê biryara Barzanî, ji derdorên cûda yên siyasî daxuyaniyên piştgiriyê têne dayîn. Piştî vê fermana Barzanî, Sekreterê Giştî yê Pariya Bed Nahrenyn a Asûrî Romyo Hekarî jî di xuyakirin ku wê şervanên Asûrî û Suryanî jî di bin banê Wezareta Pêşmerge de bêne bi rêxistinkirin. Partiya Yekîtiya Îslamî ya Kurdistanê jî da xuyakirin ku di vê mijarê de ew bi PDK'ê re li ser rêgezekê li hev hatine.

Wezîrê Pêşmerge yê Berê yê Herêma Kurdistanê Cafer Şêx Mistefa jî her 7 xalên fermana Mesûd Barzanî ya ji bo yekdestkirina hêzên Pêşmerge weke helwesteke wêrekdar nirxand. Şêx Mistefa, got: “Yekkirina Hêzên Pêşmerge armanceke pîroz e û yên ku li dij vê armancê derdikebin divê bi cezayên herî giran bêne darizandin” Mistefa her wiha ragihand ku di derbarê ve mijarê de Berpirsê Polîtburoya YNK'ê Mele Bextiyarî ji Barzanî re nameyekê şandiye. Cefer Şêx Mistefa anî ziman ku 'Pêşmerge hêza neteweyî ya kurdistan e' û got: “Ji bo vê erka xwe bi cih bîne, divê li gel YNK, hemû partî piştgirî bidine Serok Barzanî”

### Asûrî jî beşdarî Artêşa Neteweyî dibin

Ji alî din ve Sekreterê Giştî yê Partiya Bed Nahrenyn Romyo Hekarî jî ragihand ku wê şervanên Asûrî û Sûryanî jî di bin banê Wezareta Pêşmerge de bêne bi rêxistinkirin. Romyo Hekarî, da zanîn ku ew ê bi hemû hêzên xwe bikebin bin sîwana Wezareta Pêşmerge, ew ê yekîneyeke ku ji 500 şervanan pêk tê li rojhilatê Mûsil, li nehiyeya Tel Sikûfê bêne bi cihkirin û ev hêz ew ê parastina vê herêmê bikin. Hekarî dom kir û got: “Armanca vê yekîneyê; Parastina herêmên ku hatine rizgarkirin e. Piştî ku ev herêm baş hatine parastin, ew ê pêşî li vegera koçberên bê vekirin”

### Yekgirtû piştgirî dide Barzanî

Selîm Koyî'yê ku yek ji Rêveberên Payebilind ên Yekgirtûyî Îslamiya Kurdistanê ye da zanîn ku ew piştgirî didine birayara Barzanî ya sazkirina Artêşa Neteweyî. Piştî pêşniyaza Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, Selîm Koyî çû qadên ku ji alî Pêşmerge ve hatine rizgarkirin û li wê derê ragihand ku piştî dîtina van qada ew matmayî maye. Selîm Koyî da zanîn ku bi mebesta tekoşîna li dij DAIŞ'ê wan bi Mesûd Barzanî re hevdîtinekê pêk anîne. Koyî ragihand ku di vê hevdîtinê de Barzanî ji wan re gotiye: 'Biçin rewşa qadên ku Pêşmerge ew rizgar kirine bi çavên xwe bibînin' û wiha dom kir: “Em çûn û me qadên ku Pêşmerge ji terorîstên DAIŞ'ê rizgar kirî ye dîtin. Qadeke mezin ku ji Zûmar û Rabîa, heta Şengalê ji terorîstan hatiye rizgarkirin. Lê me dît ku terorê vê qadê haniye çi halî jî. Kevir li ser kevir nemaye. Li hember van dîmenan em pir matmayî man” Selîm Koyî, diyar kir ku di hevdîtina bi Barzanî re her wiha grîngiya li dij DAIŞ'ê tekoşîna hevgirtiniyê jî hatiye rojevê û got: “Me ji ber hewldanên wî yên ji bo restorekirin û yekdestkirina hêzên Pêşmerge Serok Barzanî pîroz kir”



### 100 hezar Pêşmerge ne di bin banê Wezaretê de ne!

Ji aliyekî ve li Herêma Kurdistan yekdestkirina hêzên Pêşmerge tê nîqaşkirin, ji alî din ve jî aşkere bû ku 100 hezar Pêşmerge ne girêdayî Wezareta Pêşmerge ne. 100 hezar Pêşmergeyên Partiya Demokrat a Kurdistanê(PDK) û Yekîtiya Niştimanên Kurdistanê(YNK) ên ku ne girêdayî Wezareta Pêşmerge ne hene. Piştî şerê li dij DAIŞ'ê destpê kir, grîngiya yekdestkirina hêzên Pêşmerge bêtir kete rojeva Herêma Kurdistanê. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, hefteya çûyî fermannameyeke ku ji 7 xalên grîng pêk tên ji Wezareta Pêşmerge re şand û di fermannameyê de xwestibû ku hêzen Pêşmerge li gor rêzikên partiyan neyêne sazûmankirin. Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Fûad Hiseyîn diyar kir ku Barzanî ji berê ve di derbarê vê mijarê de di nav hewldanan de bûye. Hiseyîn got: “Dibe ku di vê mijarê de arîşe hebin, lê belê tu kes nikare li pêş yekdestkirina hêzên Pêşmerge raweste”

### Li Guwêrê bi fermandarayia Beşdadî êrîşa nû

Di vê navberê de piştî serdana Wezîrê Bergiriyê yê Iraqê Halit Ubeydî û cîgirê serokkomerê Iraqê Usame Nuceyfî li Nehiyeya Guwêrê, hêzeke DAIŞ'ê ji 9 milan ve êrîşî eniya şer kirin û encamên xetere derketin holê. Li gor agahiyan leşkerên Artêşa Iraqê yên il eniyê weke ku li Mûsilê kirin li vir jî dev ji eniyê berdan û reviyan û ew jî bû sedem ku DAIŞ eniyê bidestxe. Hat îddiakirin ku hêza DAIŞ'ê ya li vir bi fermandariya Bexdadî hatiye destpêkirin û di heman demê dê DAIŞ'ê êrîşî Cerallah, Telerim, Siltan Abdullah, Tilşeyir, Twejani jî dike. Berdevkê PDK yê Gulanê Selaw Ebûla di derheqê mijarê ew agahî dan, “Hêzek ji artêşa Iraqê li nêzikî hêzên me, li Zap a Biçûk hatibû avakirin. Leşkerên Iraqê bi destpêka DAIŞ'ê re dev ji eniyê berdidin û direvin. Ew jî dibe sedem ku DAIŞ bi rehetî bikeve nava Guwêrê. Piştî ku agahî hatin bo hêza me ya li wir piştgirî hat şandin. Hêzên asayîşê yên li Hewlêrê bo Guwêrê hatin rêkirin. Gelek endamên wan hatine kuştin û li gor agahiyan 8 kesên li herêmê jî hatine dîlgirtin ji aliyê DAIŞ'ê ve. Pêşmergeyên Partiya Azad a Kurdistanê (PAK) jî li herêmê ne û wan derbeyeke giran li dora gundê Gobî li DAIŞ'ê xist.”

Ji ber ku şer didome agahiyên ku nehatine piştrastikirin li herêmê tên û li gor îddiayan 30 Pêşmergeyan di êrîşa dawî de jiyana xwe jidestdane.



## Em hevparên êşa Fransa’yê ne

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, bi mebesta qetlîama ku li Paytext Parîsa Frensa, li dij Kovara Charlie Hebdo pêk hat, ji Serokkomarê Frensa François Hollande re peyameke sersaxiyê şand. Barzanî di peyama xwe de wiha got: “Serokkomarê Frensa Birêz François Hollande, ez xemgîniya xwe ya ji ber êrîşa ku li dij Kovara Charlie Hebdo pêk hat ku di encama wê de li gel rojnamegeran hemwelatiyên bêguneh hatin kuştin diyar dikim. Li ser navê xwe û gelê kurd, ez sersaxiya gelê Frensa û xizmên wan kesên ku hatine qetilkirin dixwazim û vê êrîşa dijmirovî rûreş û şermezar dikim”

Ji alî din ve Serokê Parlamena Kurdistanê Yûsif Mihemmed, di serdana xwe ya Balyozxaneya Hewlêrê ya Frensa ya bi mebesta hewariya vê bûyera Parîsê ku 12 kes tê de hatin qetilkirin de xemgîniya xwe anî ziman û got: “Êşa Frensa êşa gelê kurd e jî”

# Ji rizgariyê re 4 tax man

Kobanê ya ku ji 15 îlonê ve di bin dorpêça DAIŞ'ê de bû roj bi roj ji destên DAIŞ'ê tê derxistin û şer jî bi dawî dibe. Hêzên kurd di şerê zêdeyî 120 rojan de tax û kuçeyên bajêr bi destxistin. Li gor agahiyên ku ji herêmê hatine stendin DAIŞ niha tenê li taxên başûr ên bajêr maye.

Ji 13 taxên Kobanê 9 tax hatine rizgarkirin û ji bo rizgarkirina 4 taxan jî şer berdewam dike. Her wiha hat ragihandin ku ji ber şertên zivistanê rewşa şêniyên Kobanê jî di nebaşiyê de ye. Hêzên kurd ku di çar mehin li Kobanê li hember DAIŞ'ê şer dikin jî roj bi roj tax û kuçeyên bajêr ji destê wan derdixin. Li hemberî êrîşên bi çekên giran û êrîşên xwekujiyê yên DAIŞ'ê hêzên YPG'ê şerên kolanan dike û hêzên Pêşmerge jî bi topên hawênan û fûzeyên Katuyşa û Gradî bersivê dide. Li Rojava ji bilî Kobanê li Efrînê rewş aram e lê li Kantona Cizîrê car caran di navbera YPG'ê û DAIŞ'ê de pevçûn rû didin.

### Ji nûve înşakirina Kobanê nêzîk e

Di van hefteyên borî de cihên stratejîk ên weke Miştenûr û Mekteba Reş, herêma avahiya şaredariya bajêr ji destê dijmin hatibûn derxistin. Hat ragihandin ku niha tenê sê tax di destê rêxstina terorê ya bi navê DAIŞ'ê de maye. Li bajêr êrîşên hevpar ê Hêzên YPG'ê û Hêzên Pêşmerge û bombarana balafirên navdewletî berdewam dike. Li bajêr berxwedana hêzên kurd berdewam dike û rêveberiya Kobanê jî bangawaziya jinûve înşakirina bajêr dide.

### Çavê xelkê Kobanê li roja vegerê ye

Herwiha 200 hezar xelkê Kobanê yên niha li Pirsûsa Rihayê penaber in xwe bo vegera Kobanê amade dikin û çavê wan li roja vegerê ye. Xelkên Kobanê yên di kapman de dimînin tînin ziman ku mercên kapmpan nebaş in û ew dixwazin vegerin bajarên xwe. Xelkên Kobanê yên di bin şertên zor ê zivistanê di bin berf û baranê de ne radigîhînin ku agahiyên ji eniyên şer tên wan bextewar dikin û ew bi pêşketinên hêzên kurd ê li eniyên şer bihêvî dibin. Xelkên Kobanê yên niha li kampan penaberin."

### Enwer Mislim: Zivistan tesîrê li me nake emê bi serkevin!

Enwer Mislim Hevserokê Kantona Kobanê di derbarê rewşa dawî ya li Kobanê de ji Basnûçe'yê re axivî. Mislim di destpêka axaftina xwe de anî ziman ku tesîra serma û zivistanê li ser wan çênabe û ewê li hember dijmin bi serkevin. Mislim şerê berdewam ê Kobanç-ê jî bi bîr xist û eşkere kir ku digel têkçûnan jî DAIŞ dev ji plana dagirkirina Kobanê bernade û ji bo vê yekê li piştgiriyê distîne û şer berdewam dike. Mislim bal kişand ser têkçûna rêxistina terorê ya DAIŞ'ê ya li başûr û rojhilatê başûrê bajêr û wisa berdewam kir: " Li rojhilat û başûrê rojhilatê bajêr nikarin xwe li hember berxwedana hêzên kurd bigrin. Li hin dever û herêmên ji destê wan hatine derxistin de pevçûn bi awayekî tûnd berdewam dikin. Hêzên kurd li eniyan pêş de diçin. Ji paqijkirina DAIŞ'ê ya li nava bajêr re tişt nemaye." Mislim her wiha anî ziman ku li Kobanê 13 tax hene û ji wan taxan 9 jê ji hêla hêzên kurd hatine rizgarkirin û hêzên kurd hewl didin da ku 4 taxên din ê bajêr jî ji destê DAIŞ'ê derxînin û bajêr rizgar bikin.

### Bangwaziya alîkariyê

Muslim li ser rewşa sivîlên Kobanê jî rawestiya û ragihand ku şertên zor ê ziviztanê rewşa xelkên Kobanê dixe metirsiye û wan perîşan dike. Muslim rewşa şêniyên xelkê Kobanê wiha anî ziman: "Ji ber nebûna êzing û mazotê derfetên xwe germkirinê tunene. Rewşa xelkê gellekî xirab e. Şertên zivistanê jî bi ser de hatin. Keşeya germahiyê heye. Ji ber vê yekê jî, her tim nexweşî peêk ten. Têra xelkê qût û xwazrin jî tuneye. Em wan peyda nakin. Bi taybetî jî di warê peydakirina dermanan de kêşeya me heye. Li vê derê di nigên gellek zarokan de pêlav tuneye. Rewşa sivîlên gellekî nebaş e. Lewre em dîsa dibêjin divê korîdora mirovî demîldest bê vekirin."

### Berxwedana hêzên Pêşmerge, YPG/YPJ encamê dide

Muslim bal kişand şerê hêzên kurd yê li hember DAIŞ'ê û eşkere kir ku bexwedana hevpar a hêzên Pêşmege,YPG'ê û YPJ'ê encam dane û DAIŞ têk çûye. Muslim wiha got: "DAIŞ her tim tundtir dibe û bêhtir êrîş dike. Lê berxwadana hêzên kurd ew belavkirin, piştî bi demekê em ê wan ji nav axa Kurdisatnê derxin. Di hin saetan de rewşa şer diguhere lê bi gelemperî di bin kontrola hezên kurd deye. DAIŞ bi hemû hêza xwe êrîş dike û dixwaze Kobanê bikeve. Êrîşên xwe yên xwekujiyê jî zêdetir kirin. Hemû rêbazên qirêj bikartînin. Bi êrîşên erebeyên bombekirijî dixwazin bajêr wêran bikin. Ji berk u li hember hêzên kurd têk diçin van rêbazan bikar tînin."

### Xalo: Bo pêkhatina Peymana Duhokê em li hêviya ENKS'ê ne

Hevserokê Mclîsa Kantona Cizirê, Hekîm Xalo jî li ser gengerşiyên dawî yên Peymana Duhokê jî rawestiya û eşkere kir ku wan xala yekemîn a peymanê bi cih anîne û ew ji bo pêkanîna xalên din jî li hêviya ENKS'ê ne. Xalo pêknehatin û birêveneçûna peymanê jî wisa eşkere kir: Ji ber gengeşiyên di navbera ENKS'ê de proseya Peymana Duhokê sekiniye. Di hilbijartina dawî de din av partiyên ENK'ê de keêşe û muşkile derketin. TEV-DEM eşkere dike ku eger kêşe hebin bila lijneya me hilbijartiye çareser bike. Di civîba pêk hatibû de 21 kes amade bûn lê belê 9 kes kêm bûn. Me ji xwest ku bila civînek pêk were ku hemû endam werin ew 9 kes jî werin. Di demên pêş de em ê van kêşeyan di civînên nû yê ku hemû kesî beşdariya wan bikin de çareser bikin. Bi ser de TEV- DEM pêşniyaz dike ku bila hejmara lijneyê ji 30 kesî zêdetir be û kesên nû jî bo lîjneyê bêne hilbijartin. Ji bo pêkanîna vê em gellekî dereng man. Ji bo careseriyê divê ENKS gavan biavêje. Peymana Duhokê bo me gellekî giring e. Em li hêviya ENKS'ê ne.

### Hêza Pêşmerge diguhire

Di vê navberê de bi fermana Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî hêza Pêşmerge ku di 31'ê Catmehê de derbasî Kobanê bû jî pêywira xwe dewrî hêza nû dike. Grûba yekem di heman rojê de cîhê xwe teslîmî hêza duyem kiribû ku ew ji 155 kesan pêk dihat. Sekreterê Giştî yê Wezareta Pêşmerge Cebar Yawer di daxiyaniya têkildarî mijarê de da zanîn ku hêza duyem jî pêywira xwe ya mehane bi dawî kiriye û wiha domkir, "Hêza me ya Pêşmerge ku bi DAIŞ'ê re şer dike pêywira xwe bi cîh anî û hêza nû ku ji 156 kesan pêk tê amadekariyên xwe dikin. Ew yekine jî wê bi ser Tirkiye'yê re derbasî Kobanê bibe û li hemberî DAIŞ'ê, li gel YPG'ê şer bidomîne."





## Rewan Mohamed
# Jinên kurd bo me rêber in

Mohamet li ser birêxistinbûn û têkoşîna jinên kurd jî rawestî û wiha got, "Berxwedan û têkoşîna jinên kurd bo me mînakeke balkêş e. Em wan weke rêber dihesibînin ji xwe re. Rewşa Kobanê, ya Rojava li holê ye. Jinên kurd dengê xwe gîhandin hemû cîhanê û cîhan bi cesaret û hewldana wan hesiya. Jinên kurd bi cinawirekî weke DAIŞ'ê re şer dikin  û bi serdikevin. Li Rojhilata Navîn dewletên mezin bi DAIŞ'ê nikarin lê jinên kurd rê nadin wan. Em jî, hemû cîhan jî têkoşîna jinên kurd dibîne. Ew bo me rêber in."

**Zerya Nergis**

Endama Encûmena Niştimanî ya Sûriye (ENS) revan Mohamed anî ziman ku ew weke jinên Sûriyeyî têkoşîn û tevgera jinên Kurd bo xwe weke mînak û rêber dibînin, bo bêhtir demokratîkbûna Sûriye tevdigerin û bi boneya Sûriye'yeke azad û demokrat jî ew dixwazin pêwendiyên xwe bi kurdan re derxin asta herî baş.

Rewan Mohamed endama ENS'ê ku partiyeke ku piştî destpêka ragêşiya li Sûriye hatibû damezrandin e û bo bidestxistina mafên kurd, ermen, suryan û gelên din têdikoşe diyar kir ku divê hemû gel û komên li herêmê bigîhîjin mafên xwe yên mirovî û ew weke ENS'ê berxwedana kurdên Rojava bo xwe wek mînak dipejirînin û bi taybetî jî birêxistinbûna jinên kurd bo wan balkêş e. Herwiha Mohamed da zanîn ku ew dixwazin weke partî bi kurdan rê di nava pêwendiyeke baş de bin û bi kurdan re rêya azadî û demokrasiyê bo Sûrye'yê vekin.

### Mebest demokratbûna Sûriye ye

Revan di derbarê pêwistiya avakirina partiya xwe de jî axivî û bi bîrxist ku beriya demeke dirêj li Sûriye'yê kom û gelên cûda bi boneya bidestxistina maf û azadiyan ketine nava tevgereke nû, rewşa ku piştî şerê navxweyî derketiye holê jî diyar kiriye ku ew ENS'ê ava bikin. Mohamed wiho domkir, "Partiya me bo Sûriye'yeke demokrattir û azadtir hate avakirin. Bo ku hemû gel û komên li herêmê bigîhîjin mafên xwe em têdikoşin. Pêdiwiya Sûriye weke pêdiviya nan û avê bi azadî û demokrasiyê heye. Armanca me ya sereke jî ev e.”

### Yelpazeya siyasî ya hemû gelan

Mohamed ku bal kişand ser têkiliyên Kurd û gelên din, wiha dirêjî da axaftina xwe, "Hemû gelên din bi kurdan re di têkiliyeke baş de ne. Di nava partiya me de jî gelek kurd û endamên gelên din hene. Em hemû bo welatekî azadtir li ber xwe didin. Em partiyeke rengîn in û gelek hunermend û rewşenbîrên herêmê jî di nav de cîh digirin. Partiya me li Rojava jî xebatan dimeşîne.”

### Spasî bo kurdan

Mohemed wiha domkir, "Bo aliyê Rojava û kantonan em tiştekî pêşniyar nakin. Helbet wê kurd bo xwe rêya herî baş hilbijêrin. Lê bêyî Rojava em ji bo herêma başûrê Sûriye, bo Bab Zeze, İdlib û Helebê xebatên xwe dimeşînin û pêşniyazên me hene.

Em tenê weke temsiliyet li Rojava hene û ew jî ji bo pêwendiya me û Kurdan e. Piştî nirxandinên rewşenbîran me ew partî avakir. Piştî avakirina partiye ji ber DAIŞ'ê demeke dirêj me bi dizî xebat dikir. Piştî ku me bi kurdan re têkiliyên xwe xurt kirin, li Efrînê jî me nûnergeha xwe vekir. Bi boneya vê me derfet dît ku em di derheqê modela kantonan de jî bibin xwedî fikrekê û pê bielimin. Herwiha derfeta ku em herêma xweser a Rojava jî binasin derket holê. Ji bo me ti astengî dernexistin li Rojava. Piştî ku me modela Rojava naskir, em gihîştin asteke ku em jî karibin modelekê bo Sûriyê pêşniyaz bikin. Bo van hemû xalan em spasdar in ji kurdan re.”

Daxwaza me ew e ku em pêwendiyên xwe bi kurdan re gurtir bikin û tev bigerin. Ji bo ku welatê me bibê cîhekî demokrat, divê herkes ji mafan para xwe bistîne. Em jî wek partî dê ji bo pêkhatina vê rewşê bi hevgirtinî têbikoşin.

### Kurd naxwazin ku ji Sûriye biqetin

Herwekîdin Mohamed bi lêvkir ku ew di derheqê dahatûya Sûriye de her tim bi partiyên siyasîn kurdan re di têkiliyê de ne û li ser her mijarê niqaşan dikin. Mohamed wiha berdewamkir, "Wan em bi awayeki fermî qebûl kirin û serdana me kirin. Me bi hev re hin civîn stendin û di atmosfereke germ de me li ser gelek mijaran nirxên xwe parve kirin. Di derheqê rewşa kantonan de jî ez dixwazin çend tiştan bejim. Kurd tînin ziman ku ew naxwazin ji Sûriye veqetin û dibêjin 'em parçeyek ji Sûriye'yê ne. Tiştên ku di derheqê serxebûnê de têne rojevê ne rast in. Helbet herkes xwedî mafê tayînkirina dahatûya xwe ye lê kurd tiştekî wiha naxwazin.”

### Emê pêwendiyên xwe bi kurdan re gurtir bikin

Mohamed li ser nifûza gelên herêmê jî ew gotin anîn ziman; "Li Sûriyê piştî ereban gelê herî qerebelix kurd in. Demokratbûna Sûriye girêdayî bidesxistina mafên kurdan e. Ew jî dixwazin di dahatûyê de biz iman, çand, reng û rêbazên xwe yên netewî bijîn. Ew daxwaz bo hemû gelên Sûriye'yê deriyê demokrasiyê vedikin. Kurd sedî sed mafdar in. Di rojên pêş de me dil heye em serdaan Kantona Kobanê jî bikin û herin ya Cizîrê jî.”

### 'Têkoşîna me bo demokratbûna şoreşê ye'

Wek bersiva pirsa, 'Hûn bo serxwebûna kurdan çi difikirin?' jî Mohamed wiha got, "Em çareseriya hemû pirsgirêkên Sûriye'yê dixwazin. Bo ku bêhtir xwîn nerije em têdikoşin. Em encameke ku bi rêya hiqûqê herkes bigîhîje mafên xwe dixwazin. Bo ku ew şoreş bizivire şoreşeke demokratik em berxwe didin. Ne diyar e ku wê rewxa Esad û ya Sûriye'yê di dahatûyê de çawa bibe. Bo ku Esad biçe me şer kir. Lê pirsgirêk tenê ne ev e.em dizanin ku kêngê gelên Sûriye'yê bigîhîjin amfên xwe wê demê dê Sûriye bibe welatekî demokrat. Armanca me ya sereke jî ev e.”

### Jinên Sûriyeyî xwe bi rêxistin dikin

Li ser meseleya têkoşîn bi rêxistinbûna jinan jî Mohamed ew gotin bilêvkir, "Piştî destpêka şoreşê jin jî li her qadê çalaktir bûn. Bi taybetî jî bi rêya huner, çand, zanist û her cûre xebatên din re têkildar bûn. Di heman demê de jin cara yekem ewqas ketin qada siyasetê jî. Pir girîng e ku jin di nava hemû partiyên siyasî de çalak in. Heke ku rojekê Sûriye bibe cîhekî demokrat, wê bi raya jinan bibe. Heta ku jin azad nebin, welatek nikare azad bibe. Bo vê jî devê bêhtir jin di nava siyasetê de cîh bigirin. Jin kevirê herî girîng in bo dîwarê şoreşê. Me dil heye em di rojên pêş de konferanseke jinan lidarxin û li ser navê jinan bi rêxistinbûneke nû bidin destpêkirin."



## Xalid Doskî

# Bo Bakur û Başûr pireke hunerî divê



**Kale Badî**

Di çarçoveya 'Rojên Fîlmên Kurdî' ya ku ji alî Mala Sînemayê ya Slêmaniyê û Weqfa Îsmaîl Beşîkçî ya Amedê ve hatibû organizekirin de Wezîrê Rewşenbîrî yê Herêma Kurdistanê Xalid Doskî hate Amedê. Doskî, piştî gera xwe ya mekanên dîrokî û dezgehên çandî û hunerî yên Amedê, grîngiya kar û xebatên çandî û hunerî destnîşan kir û got: "Ji bo bakur û başûr pireyeke hunerî divê"

'Rojên Fîlmên Kurdî' ku bi hevkariya Mala Sînemayê ya Slêmaniyê û Weqfa Îsmaîl Beşîkçî ya Amedê ve li Amedê hate lidarxistin destpê kir. Di vê çarçoveyê de Wezîrê Rewşenbîrî yê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Xalid Doskî hate Amedê û li hemû mekanên dîrokî û dezgehên ku bi çand û hunerê re têkildar in geriya. Xalid Doskî li gel nivîskar û endamê Weqfa Beşikçi Roşan Lezgîn, Serokê Beşa Çand û Tûrîzmê Mûarrem Cebe, Gerînendeyê Mala Sînemayê ya Slêmaniyê Zana Hama û Cîgira Serokê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî Nazdar Kahraman li mekanên dîrokî û dezgehên çandî û hunerî yên Amedê geriyan. Wezîrê Rewşenbîrî yê Herêma Kurdistanê Xalid Doskî û lijneya li gel wî, pêşî çûne serdana Navenda Çand û hunerê ya Dîcle-Firatê û Mala Dengbêjan û bi berpirsên van dezgehên çand û hunerî re li ser xebat û çalakiyên wan danûstendinên ramanî kir. Xalid Doskî paşê jî li mekanên dîrokî yên wek; Xana Hesen Paşa, bircên Amedê û mizgeft, dêr û malên navdarên kurd ên dîrokî ku ji alî Şaredariya Amedê ve hatine restorekirin geriya.

Wezîrê Rewşenbîrî yê Herêma Kurdistanê Xalid Doskî, piştî gera xwe ya mekanên dîrokî û dezgehên çandî û hunerê, li ser vexwendina Hevşaredarên Amedê Firat Anli û Gulten Kişanak, derbasî Şaredariya Amedê bû û li şaredariyê ji alî Hevşaredaran ve hate pêşwazîkirin. Di serdana xwe ya Şaredariyê de Xalid Doskî, li ser hatina xwe ya Amedê kêfxweşiya xwe anî ziman û ji bo lidarxistina çalakiya 'Rojên Fîlmên Kurdî' spasiyên xwe pêşkêşî Mala Sînema ya Slêmanî û Weqfa Îsmaîl Beşîkçî ya Amedê kir. Doskî anî ziman ku fîlmên sînemayê dikarin li çar aliyên dinyayê belav bibin û peyamên çandî, hunerî û êş û azarên gelan bi gelên din re bidin hestkirin. Doskî tofana ku bi dest DAIŞ'ê hatiye û li kurdan qelibiye bi bîr xist û got: "Dijminên kurdan, bi navên cûda her dem xwestine zordariyê li ser kurdan pêk binin. Berê Baas bûn, îro DAIŞ'e û wê sibê jî dibe ku bi navekî din derkebe pêşberî kurdan. Lê belê em dikarin bi çand û huner xwe nêzîkî hev bikin, siyaseta xwe bi hevgirtî bi rêk û pêk bikin û van awayên xwe li dij dijminên kurdan weke mertal bi kar bînin"

> Qadir Doskî, di serdana xwe ya Mala Dengbêjan de rastî pêşwaziyeke balkêş a dengbêjan hat. Li Mala Dengbêjan dengbêjên herêmê dîwanekê li dar xistin û bi stran û kulamên xwe Wezîrê Rewşenbîrî yê Herêma Kurdistanê pêşwazî kirin.



### Şehîdên me perçeyên Kurdistanê nêzîktirî hev dikin

Hevşaredarê Amedê Fırat Anlı jî ji ber hatina Wezîrê Rewşenbîrî Xalid Doskî ya Amedê kêfxweşiya xwe anî ziman û got: "Bi saya ciwanên me yên ku li Şengal û Kobanê, li dij DAIŞ'ê mil bi mil têdikoşin û şehîd dikebin, em nêzîktirî hev dibin" Anlı, grîngiya xebatên sînemayê û bi taybetî jî çalakiyên wek 'Rojên Sînemayê yên Kurdî destnîşan kir û got: "Ev xebat bila bibe sedem ku hemû perçeyên Kurdistanê nêzîktirî hev bibin.

Hevşaredarê Amedê Fırat Anlı di derbarê pêvajoya çareseriyê ya ku li bakur tê birêvebirin de jî diyar kir ku di nav her dû aliyan de agirbesteke berbiçav heye, hem artêşa Tirkiyeyê û hem jî gerîlla li gor vê agirbestê tevdigerin lê belê dewlet gavên bi tîn neavêtiye. Anlı got: "Gelê me xweseriyê dixwaze lê dewlet gavan neavêtiye. Lê belê ji Şengal û Kobanê agirê azadiyê çîk daye û roj bi roj mezintir û gurrtir dibe" Anlı da zanîn ku dewlet ta radeyekê ji hin tiştan re çavên xwe digire lê di destûrê de tu guherîn çênake. Lê belê em dixwazin ku mafê xweseriya kurdan di destûrê de bê nivîsandin. Ger wisa nebe sibe roj desthilatdarên nû bêne serê Tirkiyeyê, wê karibe ew mafên ku bi devkî dane paşve bikîşîne" Firat Anli, diyar kir ku ew ji ber van sedeman ew dixwazin mafê xweseriyê di destûrê de bê nivîsandin da ku garantî bibe.



### Xebatên hunerî dkarin Başûr û Bakûr bikin yek

Piştî hevditinan Wezîrê Rewşenbîrî yê Herêma Kurdistanê Qadir Doskî ji BasNûçeyê re ragihand ku çalakî û xebatên sînema û beşên din ên çand û hunerê dikarin rikberiya di navbera alî û hêzên kurd de nerm bikin û wan nêzîktirî hev bikin. Doskî axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Ez pir kêfxweş im ku Îsmaîl Beşîkçî'yê ku ji bo azadî, maf û nasîna kurdan kedeke giranbûha daye û bi salan di zindanan de maye, niha jî bi xebatên weqfên xwe kar û barên çand û hunera kurdan dimeşîne. Ji ber van karên pîroz ez Beşîkçî û weqfên wî pîroz dikim"

# Mucize

## Fîlmê Mahsun Kırmızıgulî



**Nadire G. Aldatmaz**

Fîlmê Masun Kırmızıgülî "Mucize" roja verêne ya serra neweye de, salonanê sînema de dest bi musnayişî kerd. Mi fîlmê Mahsunî yê verênî kî dîbî. Ez wazena ke tenê bahsê ê fîlman bikerî û dima "Mucîze" ser o binusî.

Fîlmê Mahsun Kirmizigulî bi giranîyê dram ê. Hîkayeyê xo rastken ê yan kî nêzdîyê rastenî yê. Fîlmanê eyî de merdim problemanê şarê ma vîneno. Labelê heme probleman yew fîlm de vîneno. Bêşik qapasîteya yew fîlmî seba problemanê yew şarî bes nîya. Bi taybetî seba kurdan. Yanî Mahsun yew tema ser o qewetin nêvindeno, eksê ci bi desan problemî estê û o wazeno ke heme probleman yew fîlm de bineqişno. Winî kî keno, davîstê problemî yew film de ca gênê û bi no tore mesajê xoyo bingeyin qewete ra gineno war o. Çewres mesajî eynî fîlm de yenê dayene û mesajê xo kî sey mesaj belî yê. Yanî mesajanê xo keno çimanê merdimî. Nîya ke bî kî hem tebîatîya fîlmî hem kî qeweta fîlmî bena vila û merdim nêzaneno ke kamcîn derdî rê binalo. Ma vajîme: Fîlmê eyî yo diyin "Güneşi Gördüm" de dramê yew keyeyî esto. Keye teberê waştişê xo, bêzerrî bi zorê dewlete bar keno şono Îstanbul, uca, a ke nêameya sereyê înan ser de nêmanena. Keye ra taye kî şone welatanê Europa. Fîlm de ma dramê înan kî vînenîme. Halbukî dramê Îstanbulî bes bî û zaf rind kî neqişnaybî. Yanî bi kilmî hîkayeyî ke zêdîyayî film eksenê temaya xoya rastkene ra kewno dûrî û axme beno. Zafîya temayan ra teber no film zaf rind bî. Sey fîlmê eyî yê verênî ez zaf têsîr de mend a. Wexto ke merdim rast vajo, performansode nîyanen kî seba Mahsunî zaf rind bî. Çike ma o sey deyîrbazî, sey dengbejî nas kerdîbî. Hunerê sînema teberê karê eyî de bî. Coka ez verê nê serkewtişî de şaş bîbî. Fîlmê verênî ke nîya rind bî nafa ganî senînîya fîlmanê peyênan dahîna rind bo. Yanî merdim pabeyê fîlmanê rindtiran beno, seba senînîya fîlmê neweyî krîteranê serkewtişî berz gêno.



Fîlmanê Mahsunî ra "Beyaz Melek (2007)" fîlmo ke verê verkan tey kirmanckî qisey biyo, o yo. Yanî lîteratur de sey fîlmê kirmanckîyê tewr verênî bahsê ci beno. Fîlm de çend dîyalogê kilmî bi kirmanckî bî. Ez ke xelet nîya, ruşnayişê Îstanbulî ra avêr cinîke awe kena merdimekî ro, sereyê eyî şuna. Hetê ra kî tey bi kirmanckî qisey kena. No dîyalog zereyê fîlmî de cayê xo der o, zaf tebîî yo. Çike cayo ke merdimek tey ciwîyeno de kirmanckî qisey beno. Dima ke şî Îstanbul na rey kî her kes tirkî qisey keno, no kî tebîî yo. Labelê filmo peyên "Mucîze" hem hetê ziwanî ra hem kî hetê mahîyetî ra zaf problemin o.

Mewzuyê filmî nîyar o: Rojawanê Tirkîye ra tayînê yew malimî vejîno be rojhelat, yew dewa kirmancan. Malim karê xo ra û însanan ra zaf hes keno. Coka dûrî-mûrî nêvano vejîno şono. Dewe de ne raye esta ne kî mekteb esto. Hîkaye heta tîya zaf nas a. Labelê çîyo ke nas nîyo û tebîî kî nîyo ke no yo: Malim ke kewt dewe, dewijî verê cû çekanê xo re malimî gênê û pers kenê, vanê: "Ti kam a." Malim bi tersode girs vano: "Ez malim a." Dewijî çekanê xo desinde nanê ro û vanê: "Ti zazakî muşnena re domananê ma?"

Keso/a ke sînema de nîşto/a ro û film ra çîyode rind, çîyode qalîteyîn paweno/a, na cumle ra tepîya êdî zaneno ke ganî zaf çî mepawo. Serre 1960 ya. Tirkîya de derba bîya, neke muşnayena kirmanckî, ê serran de qiseykerdena xo bîle qebehat a. Yanî ne dewijan de zanayîşode winasî esto ne kî talep esto. Dewijî nêzanenê ke bîle heqade xoya nîyanene esta. Xora tersê dewlete şarî ser o zaf o. Dêrsimî ser ra hîna da-vîstê serrî vêrdê ra. Yanî miletî de ne o cesaret esto ne kî hêvîyode winasî. Her çî ra avêr ez vana qet zanayîşode nîyanen çin o. Coka film de persê dewijan "Ti zazakî muşnena?" hewa ra mendo. Xora malimî kî cewab nêdano û a cumleya bêmanaye winî bena vîndî şona. Dewamê filmî de reyna kî no qal nîno ra.

Esas qehremanê filmî Ezîz o. Ezîz qusirin ameyo dinya. Qusirê xoyê spastîkî zaf avêr ê. Hîkaye ganî dormeyê Ezîzî de avêr şero. La heta zewacîyayîşê Ezîzî hîkaye Ezîzî ra dûrî ya. Malim ge-gane tey nîyadano, hende. Ma hîssanê Ezîzî zaf nêzanenîme heta ke peynîya filmî de ey bi xo va. Ganî film de hîssê Ezîzî ver de bîyêne. Ganî ma dinyaya eyî ya tarîye, tenge dahîna zêde bidîyêne. Çîyode bîno absûrt kî didanê heme dewijan zaf qilêrin, qertîşin û puç ê. Bi nê didanan çi mesaj ruşna, lazim bî nêbî ez emîn nîya. Eksê dewijan kesê ke eşqiya yê dest-rîyê xo zaf pak bî, rîyê Selîmoyî sey yê saristanijan nîyadaye bî. Ne tîje ne kî serd ginaybî ci, winî rindek asenê.



Film de dewijan boyna tirkî qisey kerd. Kirmanckîyo ke ge-gane qisey kerd kî seke seba ke tey o kî bibo, kerdîbî ci. Winî alelade pijiqnaybî zereyê filmî. Halbukî luzimîya nîyanene çin a. Ganî film ya kirmanckî bibîyêne û binnuşteyê xo tirkî bibîyêne yan kî temamê filmî tirkî bîyêne. Çike rastê xo dewijî tirkî nêzanenê. Domanê mektebî tirkî nêzanenê. Ziwanê înan ganî kirmanckî bîyêne û yê malimî kî tirkî. Wexto ke tirkî qisey bî kî binnuşteyê xo kirmanckî bîyêne. O wext hem film naturel bîyêne, rastîye ra zaf dûrî nêkewtêne hem kî kirmanckî rê xizmete kerdêne.

Ez nêvana kam ke kamcîn ziwan qisey keno wa o ziwan de film bivirajo. Qesta mi a nîya. Ez vana ke "Mucîze" de seke ê dewijî tirkî zanenê û ge-gane kî canê xo wazeno kirmanckî qisey kenê. Winî aseno, halbukî durum winî nîyo. Ma zanenîme ke dewe de camêrdî tirkî zaf nêzanenê, cinî kî qet nêzanenê. Belkî ameyena malimî ra tepîya merdim şîkîno ke înan ge-gane bi tirkî bidayo qiseykerdene.



Ziwanî ra teber kî problemî bî. Mesela malim bi rojan raye ra şî û winî rest be dewe. Dima bi qeyretê malimî dewe de mektenb virajîya. Malzemeyê viraştena mektebî qum, çîmento û pîrîket bî. Hende malzeme çitur ameye dewe ma nêdî. Xora bineyê ê şartan de mumkun kî nîyo. Çike raye çin a, dewe serê koyî der a û koyî zaf berz ê. Ancî masajê "Eşqîyayî esasen kesê xirabinî nîyê, ê zaf rind ê. Ê bi keyfê xo nêvejîyê be serê koyan. Mekteb kî virajenê, teslîm kî benê." kewt be zereyê çimanê ma.

Fîlm de çîyo tewr rind kayê Ezîzî (Mert Turak) bî. Ezîzî rast kî heqa rolê xo daye û performansêde zaf rind musna be ma. Mi va belkî peynîya filmî de rindîya malimî goyneno û çitur tedawî bîyo, çitur faydeyê malimî dîyo aye vano la winî nêbî. Na kî rindîyade bîne yê fîlmî bîye.

Heme fîlmanê Mahsun Kirmizigulî de estorî balkêş ê û rengode zaf weş danê fîlman. Pêroyîye dîyayîşê (resmê) fîlman zaf weş o.

Çi beno bibo, tek be tek bo kî, çekuye be çekuye bo kî salonanê sînema de qiseykerdena kirmanckî (dimilkî, kirdkî, zazakî) heyecan dana be mi. Ez hêvî kena ke rojê yew film virajîno û temamê filmî kirmanckî beno.



# Ez sey to huyena

**Muhamed Deza Batur**

Her roce ez pê nameyê to dest bi ciwîyayîşî kena. Her wextê mi de teyna ti esta. Ez pê to dest bi qiseykerdişî kena. Yan zî wexto ke ez qisey kena hîş û aqilê mi de teyna ti esta. Heme herketanê mi de ti esta. Ez sey to qisey kena, sey to huyena, sey to bermena, sey to ewnîyena, wexto ke ez çîyêk biwerî sey to wena, wexto ke ez çîyêk bişimî sey to şimena. Ez sey to ewnîyena û biewnî ça ra teyna to vînena. Ez sey to rayîr ra şina, hetta wexto ke ez ginena erd ro, sey to wina derg erd de manena. Mi to ra wina hes kerdo ke, ez serabin ti ya.

No beden yê min o. La ruhê mi, yê to yo. Çunke her çiqas ez eynike de sûretê xo bivînî zî, çimanê xo de ez teyna to vînena. Çimê ke verisnîyê ruhê însanî yê. Çimê însanî, ruhê merdimî ra çita bivîyaro ê nîşan danê, ê qisey kenê. Çimê însanî, zerrî ra çita bivîyaro ê vanê. Çimê însanî, zuran ra dûrî ye. Naye ra mi hol fam kerdo ke no beden yê mi bo zî ruhê mi teyna yê to yo. Ez çiqas vacî ez ciwîyena zî zur a. Ez nêciwîyena, ez nê bedenî de pê na bêçareyîya xo teyna yew meyman a. Û paweyê roca teslîmkerdişê ruhê xo ya. Her kuçeyê şaristanî de ti esta. Her cehde de rîyeçê to mendê. Heme dêsanê keyeyê mi de xeyalê to aliqnaye yo. Ez biewnî ça ra teyna to vînena. Ez kam het a şîyerî zî peynî de resena to. Seke yew awe biherikîyo û peynî de bireso behrê xo. Ez zî wina herikyena û peynî de resena to. Her veng de vengê to esto. Her veng to ano mi vîr. Her kes bineyke maneno to û seba ke her kes bineyke maneno to, ez her kesî ra hes kena. Her deyîre semedê to ameya nuştiş sankî. Her şîîre de ti esta sankî. Her şaîr behsê to keno. La ti ne qedîyena ne zî bena kêmî. Her vile rindîya xo to ra girota sankî. Her çî de bineyke ti esta. Her çî bê to nêmcêt o. Rocan de roştî, şewan de tarî ya ti. Ti hem rengê şayî hem rengê xemgînî ya. Ti hem rengê cuye, hem rengê mêrgî ya.

Ez wazena vacî ke ti naye bizane. La ti ça ra zana ke. Tiya ke bi serran o mi ra bêxeber a. Tiya ke heskerdişê mi qij, eşqê mi zureyin vînena. Tiya ke verê na qîjîya mi de kerr a. Tiya ke nê adirî ra awiranê xo remnena. Tiya ke verê na kila zerrîya mi de kor a.

Wa bo. Ti heskerdişê mi qij, eşqê mi zureyin bivîne. Û na qîjîya mi qet meşinawe. Nê adirê mi rê mebe awe. Vindere û temaşe bikere ez senî na kila berze de veyşena. Veşnayîş karê aşiqan o. Aye ra ez qet nêtersena. Ne xo dûr gêna ne zî remena. Çunke ez zana, bara eşiqan tim adir o. Bextê înan de tim veşayîş esto. Cayê înan mîyanê kile yo. Naye ra yo ke, sîsperikî tim dormalê adirî de firdanê. Hema ke wa yew kila adirî bivîne înan rê bes o. Dormalê kile de govende gênê. Yew govenda ke tede hem şayî hem xemgînî esta. Seba ke resayê waştîya xo şa yê. La na şayî de xemgînî nimite ya. Çunke peynî de mergê înan esto. Na govenda dormalê kila adirî, yew govenda mêrgî ya. Reyna zî qet şîkayet nêkenê. Dinya awan bîya nêbîya, ma qet înan ra yew şîkayet nêşinawito. Înan çirê xo dima yew çeku nêverdaya. Tim wina bêveng xo veradanê mîyanê nê adirî. Qet kesî înan ra yew qîjî nêşinawita. Bi serran o ke ma înan temaşe kenê. Bi serran o ke ma şahid ê. Bi serran o ke no merg wina bêveng wina weş o. Çunke no merg wuslat o. Naye ra ez reyna vana, wa bo. Ti heskerdişê mi qij, eşqê mi zurêyin bivîne. Û na qîjîya mi qet meşinawe. Nê adirê mi rê mebe awe. Vindere û temaşa bikere ez senî na kila berze de veyşena!

# Bîyayişê ziwanan ser o teorî û efsaneyî

**Müjdat Gîzlîgöl**

Însanan timûtim ziwan meraq kerdo; ziwanî senî virazîyayê, sifte kamcî ziwan qisey bîyo. Nê pêro meraq kerdê. Labelê qando ke nuştiş zaf zaf behdê qiseykerdişî vijyayo însanî nêşenê cewabê nê persan bidê. Belgeyê tewr kehanî 5500 serrî ney ra ver, wextê sumeran ra mendê. Tarîx de zaf merdiman bîyayîşê ziwanî meraq kerdo û ziwanî ser o xebetîyayê. 500 serrî verê Îsayî yew merdimo hindistanij bi nameyê Yaksa nê gureyî ser o xebetîyayo. Bê ney wextê Herakleitosî ra Demortitos, wextê romayîyan ra Varro û Donatus zî ziwanî ser o xebetîyayê.

Bîyayişê ziwanan de nê di efsaneyî zaf yenê vatiş:



**1.Efsaneyê Birca Babîlî**

Kûleya Babîlî zaf efsaneyan de û zaf kitaban de ravêrena. Goreyê nê efsaneyî, vanê, însanî qando ke biresê Homayî kûle virazenê. Na kûle roj bi roje bena berz. Homa vîneno ke kûle ha bena zaf berze, ê ke kûle virazenê, her yewî rê yew ziwan dano û her yewî erzeno cayê, pêrin vila keno. Ziwanê cîya-cîyayî zî wina virazênê.

**2.Efsaneyê Qralê Misirî Psammetîkosî**

Goreyê nê efsaneyî, vanê, qralê Misirî zaf meraq kerdo ke nê ziwanî senî virazîyayê û sifte kamcî ziwan virazîyayo. Psammetîkos vano, merdim ziwanî bi goş a museno, eceb yew merdimo ke goşan ra nêeşnaweno do kamcî ziwanî qisey bikero. Psammetîkos nê meraqê xo dima veydano yew şiwaneyî. Di qeçekê ke newe ameyê dinya, dano nê şiwaneyî. Vano, nê qeçeqan deke axur, wa kes nînan nêvîno û wa kes nînan het yew qisa zî nêkero. Şiwane nê qeçeqan keno axur. Şiwane bê wextê nan û awe nêşino nînan het. Qeçî tayn benê gird, rojê no şiwane şenî ke şino nînan het qeçî destanê xo kenê derg û vanê, “Bekos”. No şiwane nê qeçan beno qralî het, hal û mesela vano. Qral zî vîneno ke qeçî vanê “bekos”. “Bekos” ziwandê Frîgya de yeno manayê nanî. Qral Psammetîkos vano, ziwan ihtîyacan a yeno meydan. Û vano, dinya de ziwano siftekên ziwanê frîgyayijan o. Na mesela Homerosî nuşta û ameya no dem.

Bê nê di efsaneyan hewtna teorî estê. Esas, zaf teorî estê la êyê ke zaf yenê qebûlkerdiş nê yê.

**1.Teorîyê Ademî:** Goreyê nê teorî, Homayî Adem viraşto û rişto dinya. Ademî name nayo heme çî ya. Ziwanî zî wina ameyê meydan.

**2.Teorîyê Gulbangî (reflection-yansıma-yankı):** Însanan der û dormeyê xo de çi veng dîyo teqlîd kerdo û ziwanî nê teqlîdî ra ameyê meydan.

**3.Teorîyê Înterjeksîyonî (tedbîr-ünlem):** Însananê verênan tersê xo, keyfê xo, qehrê xo eşto teber û nê vengan a zî ziwanî ameyê meydan.

**4.Teorîyê kar û xebate:** Goreyê nê teorî, însanan timûtim pîya kar kerdo. Însanan wexto ke karê xo kerdo, pîya vengî vetê. Nê vengî demî ya bîyê qiseyî û ziwanî ameyê meydan.

**5.Teorîyê Aşme:** Însananê verênan rê aşme timûtim qiymetin bî. Goreyê nê teorî însanan qisaya verêne aşme ra girota û ziwanî zî a qisa ra bîyê vila.

**6.Teorîyê Tîjî:** Goreyê nê teorî, tîjî zaf qiymetin a û heme çî tîjî ra ameyo meydan. No semed ra ziwanî zî tîjî ra vijîyayê.

**7.Teorîyê muzîkî:** Goreyê nê teorî, însanan xo mîyan de deyîrî/kilamî vatê. Qiseyî zî nê deyîran/kilaman ra virazîyayê.

# Ji Kela Dimdimê heta Şengal û Kobanê



Mehmet Gültekin

Beriya 406 salan dagirkerên Safeviyên Îranî bi hemû hêzên xwe êriş birin ser desthilatdariya Biradostan li herêma Urmiyeyê û kela Dimdimê dorpêç kirin. Sedema vê êrişê ew bû ku serwêrê herêmê Emirxan ji bona lidarxistina serxwebûna xwe dicedand.

Emirxan û kurdên herêmê beriya wê li dijî Osmaniyan, yên ku bona dagirkirina Urmiyê hewl didan, şer kirin û Osmanî ji wir bi dûr xistin. Di vî şerî de destekî Emirxan bi şûr hat birîn û dewsa wî destekî bi zêrîn ji wî re hat çêkirin. Ji wê pêve ew di nav Kurdan de wek Emirxanê Lepzêrîn hat naskirin.

Di serdema Emirxan de gelek serwêrên kurd ên li herêmên hawirdor xwe bi desthilatdariya Bradostan ve girêdan, bi vî awayî bandora wî li Kurdistanê roj bi roj berfirehtir dibû. Emirxan ê ku pêşde dizanibû, wekî Şah Abbas û Safevîyan çav berdane welatê wî û ji bona hilweşandina desthilatdariya wî dek û dolavan digerînin, bi her awayî amadekariya berxwedanê kir. Wî berê pêşîn li ser çiyayekî asê yê nêzikî Urmiyeyê kelayek da avakirin ku wê bi navê kela Dimdimê di dîroka kurdan de cihekî taybet girt.

Kela Dimdimê ji pênc beşan pêkdihat û kurdan embarên avê amade kirbûn ku di demên şeran de nekevin nav tengasiya wê. Dema hêzên Şah Abbas di payîzda sala 1609 an de peyapey hatin herêmê, li herçar aliyên Dimdimê bi cîh bûn û amdeka riya êrişên xwe kirin. Êrişê n

Safeviyan hetanî gulana 1610 an dom kirin. Dema mirov vê pêvajoyê ji dengê dewrêşan guhdarî dike û di helbestên klasîkên kurdan û bi taybetî jî di romana Ereb Şemo de dixwîne, bê nebê Daiş a îroyîn ya ku Şengal û Kobanê dorpêç kir û bi şev û roj êrişan bir ser kurdan tê bîra mirovan, çewa me ew di van mehên dawîn de bi çavên serê xwe dîtin.

Berxwedan û komkujiya Kela Dimdimê di bîranîna hevbeş a civaka kurdan de şopeke gelek kûr peyda kiriye. Dîrokzanan dîroka wê lêkolandin, şairan li ser wan qewimandinan helbest û destan nivîsîn, wêjekarên wek Ereb Şemo romana wê nivîsand û dewrêşên kurd jî ji wê serdemê heta niha li seranserê welat beytên kela Dimdimê bi hogiriya erbaneyên xwe sêwirandin. Di şiroveyên wan de bi taybetî ya dorpêçkirina kelê, destpêka şer, demdirêjiya wê û hovitiya êrişkaran gelekî dişibîne bûyerên van mehên dawîn:

Subhê çûne Ecem e
Esker rûbar û çem e
Di pêş tê Xan Edhem e
Girtin dora Dimdim e

Siwaş û qerd û ceng e
Hisar e pir tiveng e
Jê dibarin pereng e
Hingî tîr û xedeng e.

Lewra tên wek berazan
L' xoşmêran, li şahbazan
Berdane gazegazen
Êriş birine Endazan

Êriş birin kullekan
Top avêtne şebekan
Wekî baran û şirrkan
Têk dirêjin tifinkan

Çewa ji beyt û helbestên kurdî de jî diyar dibe, kurdên di kela Dimdimê de dorpêçkirî ji bona ku li dinyayê rûreş nebin û bi banga ku ew bimirin jî li ber Şah û Sefe wiyan nay

êne rayê baweriya xwe xurt kirin û berxwe dan.

Piştî şereke dijwar ji ber ku enbarên avê ji aliyê Safeviyan ve hatin zevtkirin, berxwedan têk çû. Safeviyan Mîr Emirxan jî tê de hemû kurdên di kelayan de û hemû jin, kal-pîr û zarok qetil kirin:

Kuştin Xan û Mîran
Bi tiveng û top û tîran
Serqut in mislê şêran
Laş bûne mîna gêran

Ber nekirrand jê kuştin
Wan ew hemî dikuştin
Qet kesek jê nehiştin
Bûn şehidêd bihiştin.

Piştî têkçûna berxwedana Dimdimê Osmanî jî li ser „*soz û bextê*' xwe yê ji destpêka sedsala 16 an nesekinîn û bi êrişên leşkerî wek li ser Bitlîsê û bi dek û dolavan dest bi hêjarkirina desthilatdariyên kurdan kirin. Sedrazamên Osmaniyan tovên kevneşopiya xwe ya kuştina biran bi destê biran di nav serwêrên kurdan de jî reşandin, bangî birayên mîran dikirin, ew dijî birayên wan şîret dikirin, dişandin şerê birakujiyê û bi ser de jî ji wan bac û bertîl distandin.

Bi serkêşiya van herdu Îmaparatoriyan di Rojhilata Navîn de kevneşopiyeke talan, bac û xeracê peyda bû û ev tevgera êrişkarîyê û hovitiyê li hember pêşdaçûna zanistiyê bû asteng. Hemû herêm tevlihev bû, paşde ma, ne civakeke berhemdar peyda bû û ne jî wan hîştin ku bayê guhertin û şoreşên kêrhatî yên li dinyayê berbi rohilatê bê.

Bi ser de xelefên wan Îmaparatoriyên hov jî ev sed sal in ku ev kevneşopî berdewan kirin, hemû daxwazên bingehîn ên mirovane yên kurdan bi zordarî û xwînrijî pêpes kirin. Wan êrişên xwe hetanî beriya çend salan jî bi destê artêşên xwe dimeşa

ndin. Lê ji ber ku êdî dinya pêşketî jî destûr nade vê tevgerê, van dewletan niha jî ji bo armancên xwe yên têkbirina azadixwaziya kurdan şûrkêşên wek DAIŞ peyda kirin.

Dema ku bû sewaş e
Dergeh ku dane paş e
Bû gazî û şabaş e
Ji hev dêxistin laş e

Ev şerek bê meal e
Betlêd di bê mîsal e
Dirêj kirin mertal e
Ku lêk bidin mecal e

De lêkbidin ku wext e
Şidandin çek û rext e
Firrîn tali' û bext e
Şah rabû hate text e

Lê belê ji berxwedana Dimdimê heya niha gelek tişt jî hatin guhertin. Bi Şengal û Kobanê êdî rewşa qerektera berxwedana kurdan guherî, berxwedan êdî naşkên, kurd bi serdikevin, jinên kurd wek têkoşer û berxwedêr derketin pêş û bala kurdên li hemû dinyayê li ser welatê xwe ye û yekitiya kurdan di nav gel de ji berê gelek zêdetir xurt bû.

Carina mirov henin ku aliyên wan ê dûrbînî gelek xurt in. W. R. Hay ku di salên 1918-1920 an de li Kurdistanê mabû di pirtûka xwe ya “Du sal li Kurdistanê” de dibêje, ger ev kurd rojekê bi zanebûnek netewî hişyar bin û bigihêjin hevdu, wê demê ev dewletên ku welatê wan dagir kirine wê hilweşin. Rewşa Sûriyê û Îraqê ku ev sedsal in wan kurd qirdikirin niha bûye mîna ya gamêşekî gêj ya ku ketiye nav lîtavê û nizane bi kîjan alî ve here.





# Bozlak û Bilgin kurd bi tenê hiştin

Di demeke ke kurd û Kurdistan bi nîqaşên serxwebûn û yekîtiyê re eleqedar in, du siyasetmedar û rewxenbîrên ku bo doza Kurdistanê berdêleke giran dane û bo gelê xwe rêyeke bi êş li dû xwe hiştine çûn ser dilovaniya xwe. Murat Bozlak Serokê HADEP'ê yê berê û nivîskar û siyasetmedarê naskirî Siraç Bilgin jiyana xwe jidest dan.

Bavkalanê kurdan gotine: "Mala mêran kaniya zêra ye." Ji vê gotina kurdan tê zanîn ku dilêr û egîd û xweşmêrên kurd, ji welatê xwe re bûnê kanî û tov û axa welatê zuha nehiştine û bûnê zêrê zer serê welatiyên xwe bilindkirine. Her çiqas dîrokê lênekiribe jî, xebat û berxwedana Kurdistanê ya ku bi salane li çar parçeyên Kurdistanê li hember hêzên dagirker tê meşandin bi xwe re gelek bok û lêheng anîne pê. Ew lehengên doza kurdî û Kurdistanê, pişta xwe dane paşxan û jêrxana welatê xwe û pêşewayî ji gelê xwe re kirine. Yek ji wan lêhengên dîrokî yê siyseta kurd jî Murat Bozlak e. Murat Bozlak ê kurdê Anatoliya Navîn di sala 1952'an de li Şereflikoçhisara Enqerê hatiye dinyê. Murat Bozlak di Zankoya Enqerê de Beşa Hiqûqê xwendiye. Bozlak di kêliya xwendina zankoyê de, di temenê ciwaniyê de, bi êş û azara gelê xwe dihise. Bi sirgûnî û mişextiya kurdên Anatoliya Navîn dihise û kula wan di dilê xwe de hîs dike. Û yê din jî rewşenbîrê hêja Siraç Bilgin e ku sirgunî û dûrbûyîna ji xaka xwe dest ji qirika wî berneda û li dûrî welatê xwe bar kir û çû aliyê din.

**Murat Bozlak**

Di salên 90'î yên ku kurd bê serî dihatin windakirin û kuştin de, di salên dijminên kurdan xef û kemîn li hember wan datanîn de Murat Bozlak dest bi karê kurdîniyê kiriye. Digel hevrêyên xwe di avakirina Partiya Kedê ya Gel (HEP) de cihê xwe girtiye. Piştî girtina HEP'ê digel hevalên xwe di 21'ê Tîrmeha 1991'an de, bi Leyla Zana, Sırrı Sakık Ahmet Türk, Hatip Dicle û Orhan Doğan û Sedat Yurttaş re Partiya Demokrasiyê (DEP) vekiriye.

Di wan salan de pêşewayî û azayiya siyasetmedarên kurd a li Bakurê Kurdistanê deng vedida. Û karwanê siyaseta kurd bi girtin kuştin û mirinê re rû bi rû dima û pêlên êrîşê yê dewletê jî li ser partî û endamên partiya kurdan a wê demê li ser DEP'ê jî bi dawî nedibûn. Di sibeheke sar a Enqerê de polîsan bi ser Meclîsê Tirkiyê de girtin û parlementerên kurd desteserkirin. Girtina parlementeran, kuştina endamên partiyê çavên Murat Bozlakê dilêr netirsandiye û wî berê xwe ji berxwedanê nedaye. alî.

**Rastî êrîşeke çekdarî tê**

Murat Bozlakê di HEP'ê de dest bi siyasetê kiribû bi DEP'ê jî re têkoşîna xwe ya siyasî berdewam dike. Di 12'ê Kanûna 1993'an de ji bo Sekreteriya Giştî ya Meclisa Partiyê tê hilbijartin. Di vê demê de êrîşên li hemberî DEP'ê zêde dibin. Murat Bozlak jî bi wan êrişan re rû bi rû dimîne. Li mala xwe ya Keçiorena Enqereyê rastî êrîşeke çekdarî tê û bi giranî birîndar dibe. Piştî tedawiya destpêkê ya li Enqereyê, ji bo tedawiyê demekê li Ewrûpayê dimîne. Piştî girtina parlamenterên DEP'ê yên 3 Adara 1994'an, dest bi amadekariya partiyeke nû dike Tedawiya xwe ya li Ewrûpa di nêvî de dihêle û tevli xebatên damezrandina Partiya Demokrasiya Gelan (HADEP'ê dibe. Di 11'ê Gulana 1994'an de weke Serokê Giştî yê HADEP'ê tê hilbijartin û karê xwe berdewam dike.

Bi destpêka sedsaleke nû re peywendiyên Ewrûpa û Tirkiyê ber bi başbûnê ve çûn. Di vê çerçoveyê de Yekitiya Ewropayê, zor û fişar li Tirkiyê kir ku hin zagonan biguherîne û rewşa girtiyen siyasî baş bike. Di vê çerçoveyê de, cezayên li girtiyan dihat birrîn kêm bû. Û gellek girtiyên siyasî ji girtîgehê hatin derxistin. Murat Bozlak û hevalên xwe jî wê demê ji girtîgehê derdikevin. Murat Bozlak ê bi hişmendiya niştimanperweriyê mezin bûye û li hember dagirkerî sirgûn û çewisandinê gelê xwe bêdengnemaye û xizmeta gelê kiriye di 5'ê Çileyê 2015'an de jiyana xwe ji desta û tevlî karwanê nemir ên berxwedêrên Kurdistanê bû.

**Siraç Bilgin**

Siyasetmedar û rewşenbîrê qedir giran, bavê çar zarokan û mexdûrê serguniyê Siraç Bilgin ku beriya derbeya 12 Îlon'e tê girtin û demekê di Girtîgeha Amedê de tê girtin, pişt re jî neçarî sirguniyê dibe. Bîlgin ku weke kurdekî ku hem ji dêrê û hem ji mizgef tê hatî qewirandin bi berhemên xwe yên wêjeyî û lêkolînî jî dihat naskirin jî jayaneke jandar û bi qîmet li dû xwe hişt û jiyana xwe ji dest da.

Bilgin ê bijîşk ku demeke dirêj e li Ewropa bi nexweşiya pençeşêrê re têdikoşî di 7'ê Çileya 2015'an de jiyana xwe jidestada. Xelkê Çewligê Bilgin hem ji aliyê dewletê ve û hem jî ji aliyê hevalên xwe yên partiya wî ya berê ve gelek êş dît û piştî ku ji girtîgehê derket ji ber karên xwe yên siyasî duçarî sirguniyê bû. Rewşenbirê Kurdistanê Siraç Bilgin 'Satranç' û 'Barzanî' jî di nav de gelek berhem nivîsîbû.








# Golik'ê zindanê bi garanê re digere

**Rizgar Dargeçit**

Govara tekane ya mîzahê ya bi kurdî Golik ku bi pêşengiya karîkaturîstê girtî Mehmet Boğatekin û xêzên gelek girtîyên mîzahvan tê amadekirin gihîşt hejamara 9'emîn û hêdî hêdî dibe golikekî ciwan. Golik'ê ku girtîgehan bi girtiyan re radizê, dixwe û vedixwe û boçika xwe li ba dike, her sê mehan carekê derdikeve û li derve bi têra xwe digere û disa dizivire cem hevalên xwe yên girtî. Golikê mîzaha kurdî ku bi simên xwe dîwarên girtîgehan qul dike dema derdikeve derve hema digîhîje garanê û bi ure ure xwe bang li şêniyê garanê dike, bi wan re diçêre û rêxa xwe direşîne.

Herçîqas dî zîman û çanda kurdan ya devkî de mîzah zêde jî dî lîteratura nîvîskî de gellekî kêm e. Yekem kovara mîzahê ya bi kurdî 'Tewlo' li Stenbolê di nîsana 1999an de derdikeve. Ji ber nebûna derfetan û qedexeyên li ser kurdî Tewlo piştî demekê tê girtîn. Piştî Tewloya bî çend salan di sala 2000î de kovara mîzahê ya bi navê Pîne ji hêla çend ciwanên kurd li Stenbolê tê derxistin. Weke Tewloyê temenê Pîneyê jî kurt e û ew jî piştî çend hejmaran bî gîrtînê re rû bir û dimîne. Kovara mîzahê ya bî nave Golik ku pişta xwe dide jêrxana Tewlo û Pîneyê li ser mîzaha kurdî radisweste. Kovara Golik di sala 2012an de ji hêla çend girtiyên siyasî yên kurd derdikeve. Di nava kesên ku kayê dikin ber Golik de xêzkarê sereke Mehmet Boğatekîn e. Herwekî din Omer Raman, Pervasiz Seçkin, Ömer Özdurak, Ûsiv Amedo, Ahmet Bilge, Gernas Nenas, Payîz Başêt û gelek kesên din hene. Herwiha edîtorê rojnameya me Rawîn Stêrk jî di destpêka boçik lixwexistina golik de bi xêz û nivîsên xwe piştgirî dikir û car caran bi Golik re digere.

### Hewldanên li girtîgehê

Danerê Golikê yê bi salane di girtîgehê dene di ala 2012an li ser derxistina govareke mîzahî ya kurd diramin û dixwazin mîzaha kurdî ya devkî êdî bi nivîskî jî bigihînin ber destên kurdan. Danerên govarê pirsan ji xwe dikin û ji xwe dipirsin gelo çima mîzaha wan nayê qeydkirin û ji bo paşerojê nayê veguhestin. Danêr bi vê pirsê dest bi karê xwe dikin û peywendiyê bi ji derve re datînin. Kesên ji xwe nadin ber karên kovarê û alîkariya wan nakin. Hewldanên sê danerên kovarê yên ji derve bêencam bimînin jî ew dev ji karên xwe bernadin û berê xwe didin hundir girtîgehê, li hundir girtîgehê bi girtiyan re hevkariyê dikin û bernameya derxistina kovarê datînin.

Golik xwedî gellek taybetmendî û xususiyetên cuda ye. Yek jê jî ewe ku yekane kovar a mîzahê ya kurdî ye, kovar ji hêla girtiyên siyasî li girtîgehê derdikeve. Girtiyên siyasî yên kurd bi deh salane di girtîgehan dene lê jî mîzaha kurdî dûr neketîne û di hewldana parastin û pêşketina wê dene. Nivîskar û nîgervanên kovarê di girtîgehên Tirkiyê de ne. Di nav lîjneya govarê de ji Kurdistana Rojava û Rojhlat jî girtiyên siyasî hene. Govar ji du mehan cerekê ve derdikeve û xwe digihîne xwînerên xwe. Govara Golik, diçe Amed, Mêrdîn, Wan û gellek bajarên din ê Kurdistanê. Herwiha govar li him bajarên Tirkiyê jî tê belavkirin. Di dawiya sala 2014na jî kovarê bi hejmara xwe ya 9emîn jî xwe gihand xwînerên xwe.


Av. Ferhat Boğatekin

### Hestıyarî û kelecan

Di derbarê derçûn û amadekirina kovarê de em bi nivîskarê govarê parêzer Ferhat Boğatekin re peyivîn. Parêzer Ferhat Boğatekin eşkere dike ku Mehmet Boğatekînê biraye wî 17 sal e di girtîgehê deye. Û birayê wî rojekê jê xwestiye ku ew ji der ve alîkariyê bide wan da ku karibin kovarê belav bikin. Parêzer Boğatekin tîne ziman ku di gotinên birayên wi, ew hestiyarkiriye û wî bi kelecaneke mezin ji birayê xwe re gotiye erê û alîkariya wan kiriye.

### Zehmetiyên li ser Golik

Ferhat Boğatekin, li ser xem û keda girtiyan a li ser kovara Golikê jî radiweste û tîne ziman ku kovar ji çend proseyan re derbas dibe û bi vî awayî ji derçûnê re tê amadekirin. Boğatekin ve proseyê wiha tîne ziman: Girtiyên siyasî yen ne di girtîgeha Mehmet Boğatekîn de bûn, xêz û dosyayên xwe ji wî re dişandin. Wî ew xêz û dosyayên wan sererast dikir, ew dixistin duzeenekê û ji çapê re amade dikir. Piştî ku ji çapê re amade dikir ji min re dişîne. Di destpêkê de derketina wan dosyayan bo derve gellek zehmet bû. Rêveberiya girtîgehê ji ber xêzên kurdî yên di dosyayê de kêşe derdixistin. Wergêrek peyda dikir û heta wergera wan nekira destûra derketina wan nedida. Di destpêka derketina govarê de dosya dihatin ber destên me. Lê nivîsên hundirên xêzan nedihatin. Dosya piştî bi du sê mehan dihatin. Di hejmarên destpêkê de me gellekî zehmetî kişandin. Birayê min wê demê di Girtîgeha Bolu ya F Tîpî de bû. Gellek zehmetî dan me. Niha weşana govarê duristtir û baştir bûye. Em dıxwazin kovarê bigihînın hemû herêmen Kurdistanê"

Ferhat Boğatekin di derbarê naveroka kovarê jî de agahî dan û anî ziman ku di rojeva danerên kovarê de buyerên Kurdistanê hene û ew jî li ser wan buyeran mîzahê diafirînîn. Boğatekîn wiha berdewam kir: "Her çar perçeyên Kurdistanê di rojeva wan de ye. Di her du hejmarên dawî de li ser buyerên dawî yê li Kurdistanê rawestiyan. Berxwedana li Rojava û li Şengalê ji xwe re dikin mijar û li ser wan tiştan amade dikin. Di mîzaha xwe de cih didin binpekirina mafên mirovan ê li girtîgehan û wê jî tînin ziman."

### Golikê azad

Boğatekin sedema hilbijartina navê Golik jî wisa eşkere dike: "Golik bêhevsar e, yanî azad e. Kes nikare hevsar bide serê wî. Yanî golik îttîhad qebûl nake û nakeve bin tahakuma tu kesî. Golikê me jî wisa ye azad e. Ji ber vê yekê jî me navê govarê kiriye golik." Boğatekin bi rêya me enameya xwe jî eşkere dike û tine ziman ku ew amadene mizahên golikê belav bikin. Boğatekin gotinên xwe wisa berdewam kirin: "Kesên dixwazin kovarê bides bixin bila ji ve btek2005@gmail.com e nameyê re nameyê bişînin. Em amadene kovarên Golikê ji wan re bişînin."



Pirtûkakurdî

# Mizgîniyek bo wêje û xwînerên kurdî

Weşanxane | Nivîskar | Çîrok | Roman | Helbest | Ferheng | Rêziman | Wêje | Kovar | Teorîk | Dirok | Lêk






**Mustafa Pola**

Bi zêdebûna rêjeya xwênerên hezkiriyên kurdî re di van salên dawîn de hewldanên ji bo bicihanîna xizmetên xwîneran jî roj bi roj digeşin. Li gel zêdebûna hejmara derçûna pirtûkên kurdî û weşanxaneyên kurd, êdî qadeke din a xizmetê jî heye. Malpera pirtûkfroş 'Pirtûkakurdî' bi mebesta pêkanîna pêdiviyên xwînerên hezkiriyên kurdî hate sazkirin. Berpirsê malperê Bawer Berşev da zanîn ku armanca wan baştir û lezgîntir bicihanîna pêdiviyên xwênerên kurdî ye.

Bi sistbûna astengî û pêkutiyên li ber ziman û wêjeya kurdî re li gelek bajarên Kurdistan û Tirkiye'yê di warê weşan, ziman, huner, çand û çapa kurdî de jî gelek derfet û dezgeyên nû têne avakirin. Avakirina gelek wêşanxane, govar, navendên çandê û xebatên hunerî ket rojevê û herwiha ew rewş pel bi pel li her qadê şewqa xwe diçûrisîne. Weke tê zanîn bi pêşketina teknolojî, înternet û qada zanistî re nîqaşên ku kurdî li vê qadê pêş nakeve jî dihatin kirin û bo ku kurdî û çanda kurdî li vê qadê jî para xwe bigire hin xebat têne kirin. Herwiha ji vana mizginiyek jî bo xwîner û wêjeya kurdî hate dayîn. Malpera pirtûkfiraşî ya bi kurdî Pirtûkakurdî dest bi wêşana xwe kir û kesên ku bixwezin dikarin her cûre govar, pirtûk û wêşanên din bi rêya înternetê peyda bikin.

### Yekem pirtûkfiroşa kurdî ya nîgarî

Weke tê zanîn gellek malperên pirtûkfroş yên tirkî hene û di van malperan de hin pirtûkên kurdî jî têne frotin. Lê belê ji ber peroşiyên siyasî û aborî ev malperên tirkî gringî nadin pirtûkên kurdî û bi taybetî jî pirtûkên ku li ser mijarên siyasî ne qet nayêne frotin. Ji bo ev valahiya di qada kurdî de bê tijekirin û xizmeteke baştir û lezgîntir pêk bê malpera pirtûkfroş 'Pirtûkakurdî' hate sazkirin û hefteya çûyî dest bi frotina pirkûkên kurdî kir. Berpirsê malpera 'Pirtûkakurdî' Bawer Berşev ji rojnameya me re axivî û çîroka sazkirina malperê wiha anî ziman: "Rojekê, pêdiviya min bi pirtûkeke kurdî hebû û ez di malperên pirtûkfroş ên tirkî de lê geriyam. Lê min bala xwe dayê ku qet pirtûkên kurdî tune ne. Carcaran ev malperên tirkî pirtûkên kurdî jî difrotin, lê ew roj yek pirtûkeke kurdî jî di lîstên pirtûkên wan de tunebûn. Li ser vê yekê min ji xwe re kir armanc ku em malpereke kurdî ya pirtûkfroş saz bikin. Em çar heval, nêzîkî 4 mehan me xebatên sazkirina malperê meşand û me bingeha wê ya teknîkî amade kir. Li gel amadekirina bingeha teknîkî, em bi weşanxaneyên kurd re jî ketin têkiliyan û piştî van xebatan, dawiya hefteya çûyî malpera me dest bi xizmeta frotina pirtûkên kurdî ya li ser înternetê kir.

### Hemû pirtûkên kurdî hene

Bawer Berşev da zanîn ku di malpera wan de hemû pirtûkên kurdî û her wiha pirtûkên bi zimanên din ên ku bi kurd û Kurdistanê re têkildarin jî di lîsta pirtûkên wan de cih digirin. Berşev diyar kir ku di nav pirtûkên cûreyên wêje û qadên din de cûreya ku herî zêde tê frotin pirtûkên zarokan in û wiha dom kir: "Ji ber ku ji bilî Amedê gihîştina pirtûkên zarokan pir zehmet e, di vê xebatê de armanceke me ya sereke jî ew e ku em giranî bidine pirtûkên zarokan. Em baş dizanin ku mirov her çiqas bixwazin ku pirtûkan bi dest bixin jî, pir caran bi xwe re nabînin ku biçine pirtûkfroşekî û pirtûkan bistînin. Ji ber vê yekê bi ser malpera 'pirtûkakurdî' dikarin li her şûnekê bi hêsanî xwe bigihînin hemû pirtûkên ku bala wan dikêşîne û ji xwe re bi ser înternetê ve wan pirtûkan bikirin" Berşev diyar kir ku armanceke wan a din jî ew e ku ew pirtûkên siyasî yên ku malperên tirkan ji ber peroşiyên xwe yên siyasî û aborî ew nafroşin bigihînin xwêneran. Berşev ragihand ku niha di lîsta malpera wan de nêzîkî 2400 pirtûkên kurdî û yên bi kurdan re têkildarin hene û mebesta wan ew e ku di siberojê de hemû pirtûkên di vê derbarê de têxine lîsta malpera xwe. Berşev di derbarê sîparîşên ji derveyê Tirkiyeye û Bakurê Kurdistanê de jî ragihand ku ew dikarin ji Ewropa û perçeyên din ên Kurdistanê re jî pirtûkan bişînin û got: "Ji Ewropayê ji me re sîparîş hatin û me bi rêya kargoyê pirtûk şandin Ewropayê jî. Heta niha ji perçeyên din ên Kurdistanê sîparîş nehatine. Ji ber ku me nû dest bi vê xizmetê kiriye, agahdarî baş nehatiye kirin lê em bawer dikin ku di siberojê de wê ev xizmeta me ji bo perçeyên din ên Kurdistanê jî gelemper bibe"

Di derbarê xwefînansekirina malperê de jî Bawer Berşev da zanîn ku malper niha dikare xwe fînanse bike lê di vî warî de armanca wan ne qezenckirina pere ye, armanca wan ew e ku pirtûkên kurdî zûtir bigihînin ber destên xwênerên kurd. Berşev bi rêya rojnameya me xwest peyamekê ji weşanxaneyên kurd re bişîne û got: "Bi rêya BasNûçe'yê ez dixwazim spasiyên xwe pêşkêşî weşanxaneyên kurd bikim ku ji bo bêtir pirtûk bigihîjin ber destên xwêneran, pirtûkên xwe bi erzantir didine me"

### Bikaranîna malperê

Malpera ku navenda wê li Amedê ye bi sê zimanan; Kurdî, tirkî û îngilîzî xizmetê dike. Yên ku bixwazin, dikarin bi bijartina yek ji van zimanan sîparêşên xwe yên pirtûkan bikin. Di derbarê bikaranîna melperê de Bawer Berşev da zanîn ku kesên dixwazin sîparêşa pirtûkên ku dixwazin bikin, piştî legerîna pirtûkan, ew pirtûkên ku dibijêrin di selêka xwe de kom dikin, dûre navnîşana xwe dinivisînin, bedêla kargoya xwe dibînin û sîparîşa xwe dikin. Berşev got, "Kesên bi buhayê ser 50 TL'yî pirtûk dikirin, ji bedêla kargoyê rizgar dibin. Piştî van kiraran sîparîşên wan dijihîjin ber destên me û bi kartonên taybet yên ku me ji bo malperê daye çapkirin em pirtûkan diniximin û bi rêya kargoyê ji xwêneran re dişînin. Pirtûk herî dereng heta sê rojan digihîje xwêneran" Berşev her wiha dide zanîn ku li gor piraniya sîparîşan ew bi pirtûkan re ji kiriyarên xwe re diyariyên wek pênûs an jî defter jî pêşkêş dikin. Berşev balê keşa ser beşên pirtûkan û da zanîn ku nêzîkî hefteyek e malpera wan dest bi xizmetê kirî ye û herî zêde pirtûkên zarokan hatine frotin.

# Dengê ziman û olên Mêrdînê



Salih Batırhan

Mêrdîn dergûşa netewe çand û kulturên cûda bi pirrengî û pirzimaniya xwe li dinyayê deng vedaye. Di van salên dawî de komele û komên li Mêrdînê hatinê vekirin jî weke rûyên Merdînê ne û pirengiyê nişan didin. Koroya Ziman û Olên Mêrdînê ya di sala 2012'an de vebûye jî yek ji wan koma ye. Kordînatorê koroyê Seçkîn Mataraci di derbarê xebat û karên xwe de pirsên me bersivand.

**Koroya Ziman û Olên Mêrdînê li ser muzîka Mêrdînê çi karî dike?**

Ji bo lêkolinên li ser muzîka Mêrdînê ji hêla TRT di sala 1952'an de Muzaffer Sarisözen, Halil Bedii Yönetken û Rıza Yetişen hatine Mêrdînê. Di dawiya xebatên vê desteyê de bi tenê çend stranên tirkî hatine tomar kirin û li arşîva TRT'e hatine bi cihkirin. Ew stran ev in: "Kirpiklerin Ok mudur, Bahar Geldi Gül Açtı, Aşka Düştüm Yeni Baştan Çıkar Beni" Tenê van her sê stranên tirkî di arşîva TRT'ê de cih girtine. Mixabin ji ber qedexeya li ser zimanên din ê li Tirkiyê stranên zimanên din nedihatin tomar kirin. Stranên erebî, kurdî, suryanî, keldanî, ermenîkî di arşîvên dewletê de cih negirtine. Li hin herêman jî û li bajarên weke Amed, Riha, Elezîzê jî, meqam û ritmên stranên heremê li ser navê stranên tirkî hatine tomarkirin û çend peyvên tirkî li ser wan hatine zêdekirin tiştên wisa jî pêk hatine. Stran gotin û meqamên ne bi tirkî winda bûn. Hatin guhertin. Em niha li ser muzîka xelkên Mêrdînê kar dikin wan tomar dikin wan dixwînin. Em ê nehêlin ew dengên Mêrdîne winda bibin. Koroya koma me jî di sala 2012'an de hatiye avakirin.

**Mebesta avakirina we ya koroyê çi bû? Hûn çima ewqasî li ser tevna Mêrdînê disekinin?**

Mebesta me ew e ku em Mêrdîna qedîm kultura Mêrdîna qedîm bi dinyayê bidin nasandin. Em dixwazin haya hemû kesî ji reng û kulturên cûda yên Mêrdînê hebin. Di destê me gellek derfet hene. Em dikarin bi stranên li ser dike vî karî baş pêk bînin. Lewre di nav kadroyên koroya me de gellek kesên şareza hene. Roj bi roj li Mêrdînê em kesên nû keşif dikin. Mêrdîn nûneriyeke mezin nîşanî hemû dinyayê dide. Lewre gellek kesên ji nasname û baweriyen cihê li Mêrdînê bi hevre dijîn û li hev dikin. Ji bo vê yekê Mêrdîn gellekî muhîm e. Nûneriyeke baş dike. Li Mêrdînê xelk di nav aştî aramî û biratiyê de dijîn. Ev yek di rihê Mêrdîniyan de heye. Mêrdîn ferşeke rengîn e.

Mebesta Koroya ewe ku em aştî aramî û biratiya gelên Mêrdîne nişanî dinayayê bidin nîşanî Tirkiyê bidin. Em dibêjin ku gel dikarin bi hevre li qadekê bijîn û bi hev re bistirên. Endamên Koroyê jî tev de bi dildarî vî karî dikin. 75 dildarên ji nasnameyên cûda, ji baweriyên cûda di bin sîwana koroyê de li hev civiyane û stranên gelên Mêrdînê dibêjin. Em di 15'ê Cotmeha 2012'an de li hev civiyan û me Koroya Ziman û Olên Mêrdînê pêk anî. Koroya me weke Mêrdînê ye. Di nav koroya me kesên tirk ereb, kurd, suryanî, êzdî, elewî û sunnî jî hene. Û em bihev re stranên erebî, suryanî, ermenikî û tirkî dibêjin.

Koroya me ya sê sala ye di festival û çalakiyên kulturî de derdikeve ser dike, gellek mebest ji xwe re diyar kirine. Koro bi derfetên xwe li ser piyan dimîne û karên xwe bi aweyekî profesyonelî berdewam dike. Pêngavên xebatên muzîkê ji hêla me têne avêtin. Xebatên me berdewam dikin em li ser muzîka navçeyên Mêrdînê jî kar dikin û wan keresteŷên folklorî berhev dikin.




**Hûn kîjan enstrumanan bikartînin?**

Li bajarê Mêrdînê heta bi Cizîrê entrumanên klasîk hatine bikaranîn. Entstûrûmanên klasîk ê hatine bikaranîn jî ev in: "Keman, ûd, qanûn, cimbiş, dimbik, def û hewd... Mijarên jiyana rojane, serboriyên evînê, nexweşî û mirinê jî, ji muzikê re bûye mijar. Li deşta Mêrdînê jî ev enstûrûman hatine bikaranîn: "Def, zirne, bilûr, û erbane, tembûr, bisk û ribab" Bi van enstûrûmanan, qesîde, stranên evînê, destanên egîdan, êş, neheqî û zilm hatine xwendin. Dengbêj û mitrib li vê nerîteyê xwedî derketine û ew anîne roja îro. Em jî, muzîka qedîm derdixin ser rûyê erde. Em hemû ensturumanan bikartînin.

**Kesên di koroyê dê cih digrin hemû muzîkjen in? Hûn xwe çawa amadeyî konsertan dikin? Zimanên cûda maqamên cûda hûn çawa hemûyan digihînin hev?**

Mamoste jî hene, kevanî jî hene, melle jî heye, Xwendekar jî hene. Ji hemû qadên kar hevalên me hene. Em 75 kes in. Dema ku tên xebatên koroyê hemû dibin muzîkjen. Karê xwe yê rojane li malê dihêlin. Ji nav endamên me çend mamosteyên muzîkê jî hene. Ez jî yek ji wan im. Behsa amadebûnê bi demê re pêk tê. Hebûna çend mamosteyên muzîkê bo me dibe avantajek. Ew hevalên me, gellek bar digrin ser milê xwe. Ji bo jiberkirin û bilêvkirina maqam û stranan alikariyê didin hevalan. Em bi hevre li ser maqam û stranan disekinin. Em bi hevre dişêwirin û digihên encaman.

**Tu behsa berhevkirin û tomarkirina stran û repertuaran jî dikî. Gelo hewcedarî bi vê heye?**

Di jorê jî de min anî ziman mixabin stran û folklora Mêrdînê nehatiye berhevkirin û tomarkirin. Me ji bo salekê bernameyeke diyar kiriye. Di nava salekê de em ê hemû kerestêyên folklorê bêhtir jî yê muzîkê berhev bikin û wan tomar bikin. Dema behsa stranên Mêrdînê tê kirin mixabin li ber destên me zêdê stran tunene. Nehatin qeydkirin. Stranên Mêrdînê ya li ser Riha û Amedê hatine qeydkirin yan jî li ser hin bajarên din. Berhevkirine û bi tirkî gotine wan dikin malên tirkî ew ji dest çûne. Em dixwazin arşîva vê dewlemendiya kultura Mêrdînê hebe. Bila ji stranên wan repertuarek bimînî. Hemû tişt wenda nabe. Hewcedariya Mêrdînê bi van xebatan heye. Hevalên me jî bi dildarî xebatan dikin.